Bidestveanîna mafên neteweyî yên gelê Kurd di çarçoveya Îranek Demokratîk û Federalî de

Hejmar: 68
31'ê Tîrmehê
Buha: 150 Tûmen

agiri

Rojnameya panzdehrojî ya siyasî, çandî û giştî

Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne

## 23 Berendamên Kurd Li Hilbijartina Turkiyê De Serketin

Di encama hilbijartina seranserî ya 22.07.2007'an a Turkiyê de, 23 berendamên Kurd bi fermî wekî parlemantar hatin hilbijartin. 9 kes ji 23 palemanterên Kurd jin in.

Parlemana Turkiyê 550 kursî hene. Di wê hilbijartinê de, AKP'ê dengên herî zêde(341) bidest xist. Partiya Civaka Demokratîk (DTP) piştgirî dabû berendamên Kurd û dixwazin koma (Feraksyona) Kurd di Parlemana Turkiyê de ava bikin.

# GAVEK HEYA MIRINÊ DI RÊYA AZADIYÊ DE





Roja 17'ê Tîrmeha 2007'an, ji aliyê dadgeheke nepenî û bê parêzer ya rejîma Komara Îslamî ya Îranê biryara neadîlane ya îdamê bi ser rojnamevanê Kurd **Ednan Hesenpûr** û çalakê sivîl yê Kurd **Hîwa Botîmar** bi buxtana hebûna têkiliyan tevî partiyên siyasî yên Kurdistanê hate sepandin.

Ev biryara rejîma Îslamî ya Îranê bû sedema pêkhatina pêlek mezin û berfireh ya nerazîbûn û şermezarkirinê di asta Kurdistan, Îran û rojeva navneteweyî de. Navend û civatên ne dewletî û çalakên mafên mirovan, nivîskar û rewşenbîrên Kurdistana Îranê, Partî û rêxistinên Kurdistanî, kom û civatên navneteweyî yên parêzvanên mafên mirovan, rayedar û berpirsiyarên gellek welatên cîhanê ew biryara rejîma Îslamî şermezar kirin û daxwaza betalkirina biryara îdama han kirine.

Di vê derbarê de kampayna îmzayan hatiye lidarxistin û pêvajo bona vê armancê berdewam e.

Çend daxuyanî di vê derheqê de, di vê hejmara Agirî (68) de hene. Herweha li ser malpera me berfirehiya nûçe û çalakiyên vê der barê de bixwînin.

## 7 Sal Û Nîv Ceza Ji Bo Leyla Zana Û Hevalên Wê

Serdozgerê dadgeha bilind a temyîzê daxwaz kir ku biryara dadgeha cezayî ya ku 7 sal nîv cezayê zîndanê daye Leyla Zana, Hatip Dicle û Selîm Sadak, bê tesdîqkirin.

Wek tê zanîn Leyla Zana û hevalên wê di dema parlamenteriya DEP-ê de bi tawanê ku endamên rêxistina terorê ne, hatibûn berdadkirin û dadgehê 15 sal cezayê zîndanê dabû wan. Ew deh salan di zîndanê de mabûn.



Piştre dadgeha bilind bi sedemê kêmasiyên lêpirsînê ev biryar xera kiribû, ew ji zîndanê hatibûn berdan, lê dadgehê careka din dest bi berdadkirina wan kiribû û biryara 7 sal û nîv cezayê zîndanê ji bo wan dabû.

Parêzerên hersiyan bi daxwaza beraatkirinê û xerakirina vî cezayê serî li dadgeha bilind a temyîzê dabû. Duh serdozgerê (baş savci) dadgehê daxwaz kir ku ev 7,5 sal ceza bê tesdîqkirin.

Niha biryar ê ji bal daîreya 9-ê a dadgeha bilind a temyîzê bê dayin.

# Deftera Siyasî Ya PDK Îranê Derkirina Biryara Îdamê Ji Bo Rojnamevanên Kurd Şermezar Kir

***Ji bo /Kom û komeleyên navneteweyî:***

***Konseya Ewlekarî ya Rêxistina Neteweyên Yekbûyî!***

***Rêxistina Efûya Navneteweyî!***

***Parlemana Ewropayê!***

***Rêxistina Parêzvan ya Mafên Mirovan!***

***Civata Cîhanî ya Qelem(PEN) û Rêxistinên Mirovhez!***

Di roja 17.07.2007'an de, rejîma dijî azadî û mirovahiyê ya Komara Îslamî a Îranê hukmê neadîlane û cihê tirsê yê Îdamê bi ser rojnamevanên Kurd, **Ednan Hesenpûr** û **Ebdulwahid Botîmar**, sepandiye û ew biryare ji malbata Ednan Hesenpûr re ragihandiye. Eva di halekê de



ye ku Ednan Hesenpûr, endamê Civata Nivîskarên Kurdistanê ye û piştî çendîn mehan girtin û îşkencekirina wan, niha ji girtîxaneya Merîwanê ji bo ciheke ne xuya hatine veguhastin.

Di van çend mehên dawiyê de, rejîmê dest yê daye girtin û zîndanîkirina hejmarek ji rojnamevan û azadîxwazên din ên Kurd jî kiriye û dixwaze bi vî awayî hawara mafxwaziya rewşenbîrên vî gelî bêdeng bike.

Em daxwazê dikin di vê rewşa bi xeter û cihê tirsê de ku ji bo rewşenbîrên Kurd hatiye holê, wan di çepera berxwedanî tevî rejîma dîktator û terorîstperwer ya Komara Îslamî, bi tenê nehêlin û bi merema pêşgirtin ji meşandina hukmê îdama Ednan Hesenpûr û Ebdulwahid Botîmar û her wiha girtina rojnamevanên din ên Kurd nerazîbûna xwe bidin xuyakirin û zext û givaşanîn bo rejîmê bi merema serbestberdana wan kesan pişta azadîxwazên gelê Kurd bigirin.

**Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê**
**Deftera Siyasî**
**18.04.1386**
**13.07.2007**

# Di Daxuyaniyekê De, 12 Partiyên Kurdî Û Kurdistanî Biryara Îdama Ednan Hesenpûr Û Hîwa Botîmar Şermezar Kirin

**Xortên neteweya Kurd!**

**Kurdistaniyên bi şan û şeref!**

Hukmê kuştin, teror û tirsandina xortên neteweya me îcar ji Rojhilat ve rabûye. Vê carê li hember peyvê de hukmê gule û sêdarê bi ser rojnamevan û çalakên sivîl ên Kurd hatiye dayîn.

Roja sêşem, 17.07.2007'an, dadgeheke rejîma totalîter û azadîkuj a Komara Îslamî ya Îranê li Sine, di biryareke ne adîlane û dîktatorane de, biryara îdamê ji bo rojnamevan **Ednan Hesenpûr** û çalakê sivîl **Hîwa Botîmar** der kiriye.

Diyare eva ne cara yekemîn e ku hukmê bi vî awayî li ser xortên neteweya Kurd li Rojhilatê Kurdistanê tê dayîn. Ji dema serkar hatina Meleyan heya niha hukmê îdam û daliqandinê bi ser hezaran xûşk û birayên me di vê parçeyê Kurdistanê de hatiye sepandin û li ser wan hatiye cîbicîkirin.

Ev cinayet û serberedayînên desthilata hakim di nav Îranê de xwe negirtiye, belkî sînorên wî welatî bezandiye û komek rêberên navdar û sedan xebatkarên Kurd li derveyî tixûbên Îranê bi biryara berpirsiyarên mezin û bilind ên Komara Îslamî teror kiriye.

Derkirina biryara îdamê ji bo rojnamevan û çalakên sivîl ku tenê çeka destê wan pênûs û peyv e, ji aliyekê hov û dirindeyiya bêrade ya rejîmê dide xuyakirin û ji aliyê din ve guhnedan û ne parastina biryarnameyên li pey hev ên Komîsyona Mafên Mirovan ya Rêxistina Neteweyên Yekbûyî e ku dehan caran Komara Îslamî derheq binpêkirina mafên mirovan şermezar kiriye.

Sepandina hukmê îdamê li ser biryarên li Rojhilatê Kurdistanê, rewşa wekî hev a jiyana xortên neteweya me li hemû Kurdistana bin destê dîktator û desthilatdarên serberedayî û çarenivîsa hevbeş ya me nîşan dide.

Lewra, em nûnerên ew partî û rêxistinên Kurdî û Kurdistanî yên ku ev daxuyaniya hevbeş wajo (îmza) kirine, serbarê mehkûm û şermezarkirina tund ya biryara bêdadgeh a Komara Îslamî, em daxwaza betalkirina her çiqas zû ya vî kumî û serbestberdana Ednan Hesenpûr û Wahid Botîmar û hemû girtiyên



**Hîwa Botîmar**



**Ednan Hesenpûr**

din ên siyasî dikin.

Em ji hemû kom û komeleyên navneteweyî weke: Konseya Ewlekariya Rêxistina Neteweyên Yekbûyî, Parlemana Ewropayê, Rêxistina Efûya Navneteweyî, Rêxistina Parêzvan a Mafên Mirovan, Civata Cîhanî ya Qelem(PEN) û tev rêxistin û saziyên mirovhez dixwazin ku bi hemû awayekî mumkin Komara Îslamî a Îranê ji bo hilgirtina vî hukmî û serbestberdana Ednan Hesenpûr û Wahid Botîmar bixe bin zext û givaşê.

Em di xem û nigeraniya malbat û ezîzên Ednan û Wahid de, şirîk û hevxem in.

21.07.2007

**Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê**

**- Saziya Xebat a Kurdistana Îranê**

**- Partiya Sosyalîst a Kurdistanê – PSK**

**- Rêkevtina Demokratîk ya Kurd li Sûriyê – Wifaq**

**- Partiya Pêşverû ya Demokrat a Kurd li Sûriyê**

**- Partiya Yekîtiya Demokrat a Kurd li Sûriyê**

**- Partiya Azadiya Kurd li Sûriyê**

**- Partiya Demokrat a Kurd li Sûriyê – El Partî**

**- Partiya Welatparêzên Demokrat ên Kurdistanê - PWD**

**- Partiya Demokrat a Kurd li Sûriyê**

**- Partiya Azadiya Kurdistanê – PAK**

**Partiya Demokrat a Kurdistanê – PDK Bakûr**

# Ronkirinek Derheq Hevpeyvîna Gumanbar Ya Erfan Qaneî Ferd Tevî Mela Ebdula Hesenzade

Di van rojan de ku Kurdê Îranê li tevî cihekê bi boneya 18'hemîn salvegera terorkirina rêberê mezin yê gelê Kurd, Dr. Ebdulrehman Qasimlo bi destê dîplomat terorîstên Komara Îslamî ya Îranê li ser maseya gotûbêjê li Viyenê, bi her awayekê ku ji wan re çê bûye kerb û bêzariya xwe ji vê rejîmê dida xuyakirin û ew cinayet mehkûm û şermezar dikir, rapora hevpeyvîneke Ebdula Hesenzade di malpera "Entekhab"ê de hate weşandin, qirar e esla hevpeyvînê jî di rojnameyeke yan çend rojnameyên Îranê de were belavkirin.



Ebdula Hesenzade di vê hevpeyvînê de, ji bo gotûbêj tevî Komara Îslamî a Îranê amadebûna xwe daye xuyakirin.

Bernameya karê Ebdula Hesenzade û eva jî ku li cihekê wan gotinên xwe bi derew derdixe û li ciheke din tekezê li ser wan dike, pêwendî bi wî bi xwe ve heye û qezawetkirin li stûyê xelkê Kurdistanê ye.

Lê ewa ku em dixwazin bas bikin, çend ronkirinek li dor belavbûna van nûçeyane ji bo raya giştî ye:

1. Malpera "Pukmedia"ê roja 15.04.2007'an dinivîsîne: Ebdula Hesenzade Sekreterê Giştî yê Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê..."
Ebdula Hesenzade piştî Kongireya 13'hem ya PDK Îranê, di Tîrmeha 2004'an de, çi berpirsiyariyek di rêberiya partiyê de nema û di meha Sermaweza 1385(06.12.2006)'an, cudabûnek di nava PDK Îranê de çê kir û piştre xwe wekî Sekreterê wê partiya nû sepand.

2. Birêz Erfan Qanîî Ferd bona vê yekê ku derheq belavbûna vê hevpeyvînê ji bersiva nerazîbnûna xelkê Kurd xwe veşêre, penayê dibe ber hevpeyvînekê ku bi gotina xwe, sala 2003'an tevî Sekreterê Giştî yê PDK Îranê, rêzdar Mistefa Hicrî kiriye. Piresk ku vira berbirûyî Qaneî Ferd dibe, eva ye ku gelo ew wekî rojnamevanekê vê yekê dirust dizane ku hevpeyvîna çar salan berî niha bike pîvana analîz û şîroveya îro, di halekê de ku di van çar salan de gellek guhertin bi ser Îran, herêm û cîhanê de hatine?

3. Sebarê vê çendê jî, birêz Mistefa Hicrî, niha jî li ser ew gotinên ku wî çaxî di wê hevpeyvînê de kirine, tekezê dike û niha jî bawerî bi wan heye. Lê Qaneî Ferd di şîroveya xwe derheq weşandina dubare ya hevpeyvîna kekê Mistefa Hicrî de dinivîse: "... û armanca weşandina dubare tenê hûrbûn di dîtin û nêrînên dijhev ên Hesenzade û Hicrî ye ku yê yekê [Hesenzade] dijberê biyaniyan û heta bihosteke xaka welatê xwe nade û yê duyê [Hicrî] berevaj e." Piştî vê çendê Qaneî Ferd dinivîse "Erk û wezîfeya lêkolînvanê dîroka hemdem, dubarekirina bêaliyane û rastbêj ya gotinan e..." [Gotinê Erfan Qanedî Ferd ji Farsî hatine wergerandin]. Li vir pirs ji wî lêkolînvanê bêalî û rastbêj eva ye ku, bila nîşan bide ku birêz Mistefa Hicrî, li kudera hevpeyvînê de rizamendiya xwe xuya kiriye ku "weceb (bihustek) ji xaka welat daye"?

Di dawiyê de em dibêjin:

Bervara hevpeyvînê, qirarê belavbûna wê di rojnamevanên Îranê de, ew jî di vê demê de ku bi dehan rojnamevan bi sûç û tawana daxawaza mafên xelkê ên herî destpêkî rapêçî girtîxaneyan tên kirin û birayar lidarvekirinê ji bo wan derdikeve, kulafeyeke hinde pêç û xwar nine ku xelkê Kurd jê fêm nekin û bêdengiyê jê bikin.

Lewra bila Qaneî Ferd bizane ku sedema nerazîbûna xelkê Kurd di vê gêre û kêşê de, "çarçoveya hişk û bertesk ya hiş"ê xelkê nine, belkî hişyariya wan eva ye ku mû di nava mast de dibînin.

**Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê**
**Sekretariya**
**19.07.2007**
**28.04.1386**

# Bîranîna Mirovê Aştî û Diyalogê Dr. Ebdulrehman Qsimlo

**Reşoyê Pîrê**

Dema Îran ji hêla hêzên hevbend ve, di sala 1941'an de tê dagirkirin, pir guhartin pêk tên. Kurd wek netewe jî, hestê netewî li ba wan bilind dibe. Lewre jî, di sala 1945'an de, ji hêla nemir **Qazî Mihemed** û hin Kurdperweran ve, PDK Îranê tê damezrandin. Di demeke kurt de, PDK Îranê di nav gelê Kurd de, gul vedide û bi hezaran xort di nav refên partiyê de, cî digrin.

li Urmiya – Kurdistana Îranê – **Mihemed Axayê Wisoq**, Kurdperwerekî bi nav û deng bû. Mihemed Axa di temenê 63 saliya xwe de, dizewice. Di 22'ê Tebaxa 1930'î de, -ji wê pîrekê- **Ebdulrehman Qasimlo** ji dayîk dibe. Di wê malê de, bi hestê Kurdperwerî perwerde dibe. Xwendina xwe ya seretayî û navîn, li Urmiyê kuta dike.

Li Urmiyê, temenê E. Qasimlo, wê hîngê negihabû panzdeh salî, xebata xwe ya siyasî -bi hevalên xwe re - sala 1945'an bi avakirina **Yekîtiya Ciwanên Demokrat ên Kurdistana Îranê** li bajarê Urmiyê dest pê dike û dibe endamê PDK Îranê.

E. Qasimlo, di sala 1946'an de, ji bo xwendinê, berê xwe dide Tehranê û di sala 1948'an de, ji bo domandina xwendinê, li Parîsê bi cî û war dibe.

Piştî teqekirin li Şah li Tehranê, li Parîsê li dijî siyaseta desthilata Şahê Îranê, civîneke xwendekarên Îranê li dar dikeve, di wê civînê de, E. Qasimlo, bi hîz û berfirehî li dijî siyaseta rejîma Şah radiweste û li dawiyê nameyek ji wê civînê ji Şah re tê şandin. Li wir, bi alîkariya hin xwendekarên Kurd, E. Qasimlo Komeleya Xwendekarên Kurd li Ewropa ava dike.

Bi boneya wê civînê û ji ber berjewendiyên xwe bi Îranê re, dewleta Fransa çavsoriya xwe li E.Qasimlo xuya dike, lewre, Qasimlo ji neçarî diçe **Piragê**, paytexta Çekoslovakiya. Li zanîngeha Piragê, xwendina xwe ya lîsansê, beşê civak û konevaniyê kuta dike. Di sala 1952'an de, dema desthilata Dr. Mihemed Musediq, ji bo xebata gelê Kud û gelên Îranê, birêz Qasimlo vedigere Îranê. Piştî rûxandina hukûmeta M. Musediq, xebateke dijwar, dijî desthilata M. Riza Pehlewî dike. Piştî pênc sal ji xebatê, ji nû ve birêz E. Qasimlo, berê xwe dide Ewropa. Li zanîgehên Parîs û Çekoslaviya doktora – beşê aborî- distîne û piştre li zanîgehên


*13'ê Tîrmehê daxeke reş di eniya rejîma Îranê de ye*

Parîs û Piragê mamostetiyê dike.

Li Ewropa, di ber xwendina xwe re, bi dil û can, bi kar û barê partiya xwe radibe û di navbera Ewropa û Kurdistanê de, tê û diçe. Di kongireya sêyemîn ya PDK Îranê de, Ebdulrehman Qasimlo wekî Sekreterê Giştî tê hilbijartin. Li ba Ewropiyan, Dr. Qasimlo, wekî siyasetvanekî pispor di doza Kurdî de, tê nasîn.

Piştî daxuyana 11'ê Adara 1970'an ya di navbera desthilata Îraqê û PDK'ê de, Dr. Qasimlo ji bo birêvebirina rêxistina PDK Îranê, ew û hin hevalên xwe, li Kurdistana Îraqê bi cî û war dibin.

Bi xebata hemû gelên Îranê textê rejîma M. Riza Şah, di Şibata 1979'an de, hildiweşe, Xumeynî ji Fransa vedigere û desthilatê distîne û gelên Îranê ji zilm û zora rijîma Pehlewî rizgar dibin. Di wê demê de, piraniya zeviyên Kurdistana Îranê, bi xêra lihevkirina **PDK Îranê** û **Komelê** ketin destê Kurdan.

E. Qasimlo vedigere Kurdistana Îranê. Bi hestekî berpirsiyar û zanistî, li ber pirsa Kurdî, di Kurdistana Îranê de radiweste û bi bîr û bawerî ew û hevalên xwe, pirogirameke aqilmend, li gorî merc û heyamê heyî, ji Kurdan re datînin. Û dirûşma - Demokrasî ji Îranê û Otonomî ji Kurdistanê re- hil didin. Porogiram û dirûşmên partiyê ya aqilmend, dibe sedema sereke ji piştgiriya dostan li welatên biyanî, ji Kurdan re. Gava E. Qasimlo, diçe Ewropa, komeleyên mirovdost, pir kesên siyasetvan û akademîk rêz û hurmetê jê re digirtin. Bi saya Qasimlo, dengê Kurdistana Îranê giha derve û deriyên piştgiriyê jê re vebûn.

Piştî biserketina rejîma Xumeynî û amadekirina destûrekî nû ji welêt re, E. Qasimlo dibe endamê Meclîsa Xîbregan û kar û barê xwe dike ku nama Kurdan (**cihê her kesî ji bo kar û avakirinê di vî welatî de heye**) ji wê komîteyê re pêşkêş bike. Lê, Xumeynî, pêşniyara wî napejrîne û dibêje: **ev nûnerê Kurdan dijminê Xewdê ye**.

Şoreşa Xumeynî, weke hemû desthilatên Rojhilata Navîn, armanc û daxwazên gelên Îranê û bi taybetî yên Kurdan bin pê dike. Di 19.08.1979'an de, pêşengê şoreşa Îslamî, Xumeynî, fermana cîhada muqedes (cîhada pîroz) li dijî Kurdan li dar dixe û dibêje: **Kurd gawir in, dijî armancên şoreşa me ne**!?. Lewra jî berê keriyên şoreşê, dide gelê Kurdistanê. Bi hovîtî, mîna Holako, gund û bajar wêran kirin, bi hezaran kuştî û birîndar ji gundiyan ketin. Pêşmergên PDK Îranê û Komelê bi cangorî li hember şerê hovên Xumeynî sekinîn. Lê, hovîtiya keriyên derkevanên Xumeynî, bi hovîtî şer ajotin ser Kurdan. Li hember wê şerê har û ji ber parastina gelê Kurd, herdu hêzan PDK Îranê û Komele neçar bûn ku şerê xwe bi hêzên Xumeynî re rawestînin. Piştî rawestandina şer, valahiyeke mezin di Kurdistanê de çê bû. Derkevanên şoreşa Xumeynî, Kurdistan kirin zîndaneke mezin, bi hezaran kes îdam kirin û avêtin zîndanan.

Di vir de, pirsa herî girîng xwe davêje holê, gelo ma armanca hemû şoreşên cîhanê çi ne!?. Ne armanca wan şoreşnan, ji bo parastina mafê morovan e?. Ew mirovî ji her tiştî buha û girîngtir in!. Lê armanca şoreşa Xumeynî cudatir e!?.

Di sala 1980'an de, şerê Îraq û Îranê dest pê dike. Di bin siya wî şerî de, herdu desthilatên Îran û Îraqê, gund û malên Kurdan wêran dikin. Di dawiya wî şerî de, herdu desthilat ji hev ketin û li ber nefesa dawiyê bûn. Li pêş vê rastiyê, desthilata Îranê bi pîlan, têkilî bi PDK Îranê re lidar xistin. Gera yekem ya civînan, di 28 û 30'ê Berçile ya 1988'an de, li Viyena li dar ket, berhemên wê civînê pir baş bûn. Civîna duyem di 20'ê Çileya 1989'an de li dar ket. Di wê civînê de, xuya bû ku Otonomî ji Kurdan re pir nêzîk e, tenê şêweyên bikaranîna wê dimîne. Piştî şeş heyvan, Dr. Qasimlo di Kongireya Enternasyonala Sosyalîst beşdar dibe. Desthilata Îranî, careke din ji PDK Îranê dixwaze ku civînê bigre. Di 12'ê Tîrmeha 1989'an de, hevdîtin li **Viyen**ê pêk hatin. Di vê civînê de, ji bilî herdu nûnerên Îranî yên berê Mihemed Cefer Sehrarodî, cîgerê serokê parastina leşkerî li Kurdistanê û Hacî Mistefa Lacwerdî serokê parastinî li seranserî Kurdistanê û mirovekî dî yê bi navê Emîr Mensûr Buzorgiyan û ji hêla PDK Îranê ve 2 kes, birêz Dr. Qasimlo, Ebdula Qadirî Azer nûnerê PDK Îranê li Ewropa û Dr. Fazil Resûl ji Kurdistana Îraqê beşdar dibe. Roja din, 13'ê Tîrmehê, li seet 19.30'an, li cihê berê, hersê nûnerên Xumeynî, bi hov û xinanî, Dr. Qasimlo, Ebdula Qadirî Azer û Dr. Fazil Resûl xwîna wan diherikînin û şehîd dikin. Û ji wan, Cefer jî birîndar dibe û di nexweşxaneyên Viyene de tê dermankirin. Lê, mixabin, desthilata Nemsa, piştî dermankirina wî di nexweşxanê de, wî ber didin û di 22'ê Tîrmehê de, direve Îranê.

Di navenda Ewropa, dema guftûgo ji bo rawestandina şer û çareserkirina pirsa Kurî di Îranê de, hovên dewleta Îslamî vî karê teror dikin û kes jî ji wan nayê girtin û cezakirin. Tevî Emîr M. Buzorgiyan, çend rojan tê girtin, ji ber karê wî yê teror, lê mixabin desthilata Nemsa, ji bo berjewendiyên xwe bi Îran re, kujer Emîr ber didin û ew jî direve Îranê.

Ji edetên nemir E. Qasimlo, di her hevdîtineke bi nûnerên desthilata Îranê re, ew hevdîtin belge ( tescîl) dikir, da ku ji hevalên xwe re xuya bike. Bi xêra wê aqilmendiya nemir E. Qasimlo, deziyên wê gunehkariya hovên Xumeynî hatin belgekirin û dadgeha cîhanî pê zengîn kir. Piştî wê bûyerê, rojnemevan û dîrokzanê Firansî yê bi nav û deng, Kirîs Koçîra, wê begeyê dinivîse û di rojnama Lomond ya Firansî de diweşîne.

Di wê belgeyê de, baş dixuye ku Kurd ne şerxwaz in, aştîxwaz in, daxwaza mafên Kurdan û gelên Îranê dikin. Lê, zimanê hov û teroran quşînên jîndar in, ne diyalog û guftûgo ye!?.

Di 20'ê Tîrmehê de, bi beşdariya 2000 mirovên ku ji hemû deveran hatine, - Kurd, Ermen, Azerî, Turk, Faris û Ewropî- lehengên Kurd, Dr. Qasimlo û Ebdula Qadirî Azer di goristana Komonta Parîsê de tên veşartin.

Li ser gora şhîdên leheng, ev peyamên jêrîn têne pêşkêşkirin:

1 – Peyama Deftera Siyasî a PDK Îranê

2 - Peyama Wezîrê Karê Mirovatî yê li ba Serok Wezîrê Firansî, **Birnard Koşnêr**.

3 – Peyama Sekreterê Komeleya Giştî ya Efûya Navneteweyî yê berê **Tomas Hemrbîrk**.

4 - Peyama Sekreterê Giştî yê Rêxistina Navneteweyî ya Mafên Mirovan, **Patrîk Bodwan**

Jêder:


**1 – Çil sal xebat ji bo azadiyê, E.Qasimlo. Wergêr Ezedîn Resûl.**

**2 – Pirtûka, E. Qsimlo, mirovê dîlok û aştiyê. Wergêr B. Êva**

**3 – Kovara El-Hîwar , hejmara cêwî (44-45), Havîn û payîza 2004 an**


## Kongireya Neteweyên Îrana Federal Hikmê Îdama Rojanmevan Û Çalakên Sivîl Ên Kurd Mehkûm kir

Niha civaka Îranê pitir ji caran yê bûye zîndanekî mezin ji ronakbîr, xwedî bîr û rayên cuda, Jinan, ciwanan û çalakên siyasî û sivîl re. Vê dawiyê û di qonaxekî nû ya girtin û îşkencekirinê de, hejmarek ji çalakên medenî, civakî û jinên nerazî ketine ber êrîşekî din. Di nava wan azadîxwazan de li Kurdistanê, Ednan Hesenpûr, rojanamevan û Hîwa Botîmar, çalakê civakî û sivîl, piştî çend mehan hepsê, îşkence û zextê, bêy selimandina tu sûç û tawanekê bi îdamê hatine mehkûmkirin. Çêkirina dosyan li dijî çalakên han, berevajî buxtanên bê bingeh û destçêkirî weke sîxor û "Miharib"(li dijî xwedê) ku hertim rêbaz û hêceta serkuta vê rejîmê li dijî azadîxwazan bûye, birêve çûye.

Aliyên bitirs û xof yên vê pêla berfireh a gef, işkence, girtin û derkirina hikmên han ji aliyê bêdadgehên Komara Îslamî ya Îranê ve li Kurdistanê, rewşeke ewlehiyê ya pir ji nigeranî û tirsê pêk aniye û ew siyasetên serberedayî di awayê hikmê îdamê de, kuştina hemû civaka azadîxwaz û ronakbîrên Îranê, bi armanc girtine.

Kongireya Neteweyên Îrana Federal, hevrê û hevdem tevî partiyên siyasî, rêxistin û organên parêzer ên mafên mirovan, hikmê îdama Ednan Hesenpûr û Hîwa Botîmar, mehkûm dike û ji hemû cure hewl û tekoşînekê ku bi armanca betalkirina wî hikmî û rizgarkirina canê wan xebatkarên civakî bimeşe, piştevaniyê dike.



Hevkarî û dengê xwe bi merema rikeberiyê tevî van cinayetên rejîma Komara Îslamî, bilind û bilindtir bikin.

**Heyeta Birêveber a Kongireya Neteweyên Îrana Federal**
**20.07.2007**

**Birêz Nesrîn Qasimlo Di Hevpeyîvneke Taybetî De:**

# "Hemû kar û kiryarên min ji bo Kurd û Kurdistanê bûne û xwe cuda ji wan nizanim"

**Hevpeyvîn/ Rehîm Reşîdî**
**W: Rondik**

Birêz Nesrîn Qasimlo, berî her tiştekê ez spasiya we dikim bona ku we dema xwe bo me veqetand heya ku em bikarin li dor bîranîna cinayet û terora Viyenê de vê hevpeyvînê bi we re bo rojnameya **Kurdistan**, organa Komîteya Navendî ya PDK Îranê pêk bînin.

B. Ez jî keyfxweş im ku bo Kurdistanê dipeyivim, rojnameya ku min bîranînên zaf pêre hene.

**P. 18 sal ji terorkirina Dr. Qasimlo û hevalên wî re dibihure. Ev midehe ji bo we bi bê Dr. Qasimlo çawan derbas bûye?**

B: Di heyamê wan 18 salan de, temenê min çûye jor û saxlemiya min hêdî hêdî rû ji xirabiyê kirî ye. Lê pêwendiya min bi gelê Kurd re sar nebûye û min tu car hest bi vê çendê nekiriye ku ez ji bo Kurdan keseke biyanî bim. Hemû kar û kiryarên min ji bo Kurd û Kurdistanê bûne û xwe cuda ji wan nizanim.

**P: Di rewş û zirûfa niha de têkiliyên te bi PDK Îranê çawan in?**

B: Dema ku min zanî dîsan cudabûn rû daye, birastî ez nerihet bûm. Min rêz û hurmetek taybet bo PDK Îranê heye. Bi xasmanî ku Dr. Qasimlo roleke berçav di vê partiyê de lîstî ye. Ez alîgirê gel im û piştevaniyê ji wan kesan dikim ku gel bo pêşve dibin.

**P: Ew taqima ku vê dawiyê ji PDK Îranê cuda bûn, pareke zaf ji wan tometan dubare dikin ku di cudabûna piştî kongireya 8'an de dixistine stûyê Qasimlo û Şerefkendî û ew bi dîktator nav dibirin. We ji nêzîk ve ew rêberane dinasîn, gelo bi rastî ew dîktator bûn?**

P: Min di hemû jiyana xwe de dîtin û bihîstin ji hev cuda kirine. Li min bibure, ez gellek caran tevî serokê xweştivî yê te jî şer kiriye.

Tu dizanî, divêt li dewrana şer de nezm hebe. Ez serbarê wê ku endamê partiyê jî nebûm, lê min dîsîplîna partiyê diparast. Ger Qasimlo bigotiba ku neçim derve, ez nediçûm. Di wê rewş û zirûfê de jî, şerek giran li holê de bû. Partiyê hewcehî bi nezm û dîsîplînên pêtir hebû. Di halekê de zirûfa niha gellek baştir û jêhatîtir e bo mana di partiyê de. Min serbarê wê ku gellek tişt qebûl nebûn, lê li cihê hêcet û karşikêniyê, min hevkarî dikir. Bi her hal bo min gellek dijwar û giran e ku ez Qasimlo û Şerefkendî bi dîktator bizanim. Her di wê demê de jî ez ji cudabûnê bêzar im.

**P: Di wan salên dawîn de hin belge ketine dest ku nîşan didin Mehmûd Ehmedînejad, Serokkomarê niha yê Îranê, endamekî girûpa terora Dr.Qasimlo û hevalên wî bûye. Di vê derheqê de hûn çi dibêjin?**

B: Li zivistan û havîna wê salê de, anku sala birêveçûna terorê de, du girûpên terorê hatibûn welatê Austoryayê, daku teror ser bigire.

Tê gotin berpirsê girûpa duyem ya terorê Ehmedînejad bûye. Buzurgiyan wate yek ji



**Nesrîn Qasimlo:**

## "Min tim evîneke taybetî bo Pêşmerge heye"

terorîstan berê matorek kirîbû ku piştî terorê di nava zibildanê de tevî hin belgeyan ketine destê Polîs. Lê rastiya wê eva ye ku dewleta Austryayê nedixwest ku hevkariya me bike û heta bi zorî me termê şehîdan jê stand. Ji ber ku dewleta Otrîşê ditirsiya ew çek û teqemeniyên ku di şerê Îraq û Îranê de bi Îraqê firotibûn, eşkere bin. Lê ez dixwazim vê yekê jî bêjim ku medyaya Otrîşê tevî me bû.

**P: Başe hûn wan axavtinên Pîtir Pîlz, endamê Parlemana Otrîşê ku derheq rolê Ehmedînejad di terorê de dehan car bas dike, çawan dinirxînin?**

B: Sala borî ez hatme haydarkirin ku yek ji karbidestên Komara Îslamî ji Îranê helatiye û zaniyariyên zaf li ser terora Viyenê hene.

Min tevî aliyên pêwendîdar yên dewleta Otrîşê qise kir û piştre min rojanmevanekî Otîrşî jî ku hevalê min e, haydar kir. Diyar e wî kesî li gor gotinan, Benî Sedr jî dîtibû. Lê mixabin paşan ez hatime haydarkirin ku belge ewqas ninin ku dosya terora Viyenê bêxe kar.

Lê dewleta Otrîşê her ji destpêkê ve heya niha hevkariyên hewce ji bo cîbicîbûna dadperweriyê nekiriye. Dema xwe birêz Fîşir, Serok Komarê niha yê dewleta Otrîşê û Sekreterê wê demê yê Partiya Sosyal Demokrat, aliyê me digirt û digot ku dewlet xemsariyê li derheq vê terorê dike. Lê ez hez dikim hemû aliyekê agehdar bikim ku xatircem bin, dê rojekê hemû ew rastiyên li dor li vê terorê dê eşkere bibin û dê xelik haydarê hemû tiştekê bibin.

**P: Nesrîn xanim ger bîranînek te tevî Kek Ebdula Qadirîazer de heye, ji me re bibêje?**

B: Kek Ebdula Qadirîazer bi rastî wekî kurê min bû. Diyare ew hesta du alî bû. Ew hevtemenê zarokên min bû. Cara dawîn jî ku tevî Qasimlo bû, vegeriya û bi ken ve got ku ew û Qasimlo dê bi hev re şehîd bibin. Ev axavtine tim di mejiyê min de ye.

**P: Ez bawer im ku di 22'ê Pûşpera îsal de, xelkê Kurdistanê tevî daxistina dukan û bazaran, li ser daxwaza PDK Îranê biryar e ku demjimêr 22 heta 22:03 deqîqeyan çirayên malê xwe bitemirînin, taku bi vî awayî yad û bîranîna Qasimlo bilind rabigirin û dijberiyê tevî teror û reşekujiyê bikin. Di vê derheqê de hûn çi dibêjin?**

B: Bi rastî ez bi bihîstina vê nûçeyê gellek keyfxweş bûm. Hêviya serkevtinê bo vê bizav û livînê dixwazim û hêvî dikim bi bê tund û tûjî bidawî be. Bi rastî Qasimlo dijî tund û tûjiyê bû, ez jî her weha difikirim. Serkeftina vê ezmûn û ceribînê bo xebata aştîxwazane ya Kurd û hemû gelên Îranê girîng e û di heman demê de destkevtekî mezin e.

**Gelê Kurd bi sedema vê ku hûn hevsera Dr. Qasimlo bûn û ji aliyê din jî, we ji bo bidestveanîna armancên tevgera Kurd gellek xebat kiriye, herwekî we di destpêka vê hevpeyvînê de jî îşare pê kir ku we bîranînên zaf digel "Kurdistan"ê de hene, ji kerema xwe derheq wan bîranîn û ew xizmetên ku we bo doza rewa ya gelê Kurd kirine, ji me re bipeyive?**

B: Ez şanaziyê dikim ku min kariye rêyeke dûr û dirêj tevî Dr. Qasimlo de bipîvim û min karîbe alîkariyekê bikim. Kes nikare haşa û înkarê ji vê yekê bike ku Qazî rê diyarî kiriye û Qasimlo jî selmandiye ku partî (PDK Îranê) hêjayî bidestve girtina desthilatê ye. Qasimlo bi anîne rojeva bernameyeke rêk û pêk, biîsrarbûn û pêçeqandin li ser wekheviya mafê jin û mêran, serbarê ew şerê ku bi ser partiyê de sepandibûn, lê hemû endamên partiyê û heta xelkê din jî pir hişyar kir. Bîranînên min tevî "***Kurdistan***"ê ger ez şaş nebim vedigere bo sala 1954'ê Zayînî. Wê demê em li Tehranê bi nepenî dijiyan. Min didît ku Qasimlo gellek xwe bi karê nivîsînê ve mijûl dike û paşan jî nivîsên xwe dişîne bo çapê. Wê demê karê çap û weşanê gellek dijwar bû. Êdî min dest bi hevkariyê kir û zêdetir karê teknîkî û xedematî li stûyê min bû. Herweha karê belavkirinê jî tevî hevrêyên Qasimlo li stûyê min bû. Qasimlo wê demê xebat û tekoşîneke zaf dida ku "***Kurdistan***" du mehan carekê belav bibe. Niha ez keyfxweş im ku dibînim pêşketî ye. Hêviya pêşketinên zêdetir ji bo wê dixwazim. Hewce ye vê yekê jî bibêjim ku di Piragê de jî me çap û belavkirina "***Kurdistan***"ê domand heya ku em hatine Parîsê.

**We çi peyamek bo endamên PDK Îranê û malbatên Şehîdan heye?**

B: Min tim evîneke taybetî bo Pêşmerge heye. Pêşmerge kesek e ku dizane û çima bûye Pêşmerge û dixwaze çi bike. Min silav û rêz hene bo malbatên partiyê, herweha ez serê rêz û hurmetê bo şehîdan û malbatên wan ditevînim û dizanim ku tim di hundirê xwe de êş û azarek bijan xwedî kirine. Hêviya aramî û serkevtinê ji wan re dixwazim û daxwaza min eva ye ku di xebatê de berdewam bin.

**"Kek Ebdula Qadirîazer cara dawîn jî ku tevî Qasimlo bû, vegeriya û bi ken ve got ku ew û Qasimlo dê bi hev re şehîd bibin. Ev axavtine tim di mejiyê min de ye"**

**Daxuyaniya Hevbeş Ya 4 Partiyan Ji Bo Mehkûmkirina Hukmê Îdamê, Girtina Xwendekaran Û Çalakên Karkerî**

## Werin em ji bo rizgarkirina canê mehkûmên îdamê û serbestberdana xwendekaran bi yekgirtî kar û xebatê bikin

Îraniyên azadîxwaz!

Ednan Hesenpûr, rojnamevanê Kurd û Hîwa Botîmar, çalakê sivîl di Dsadgeha Şoreşê de bi îdamê hatine mehkûmkirin. Ednan Hesenpûr, endamê Desteya Nivîskar ya heftînameya daxistî a Kurdî – Farsî ya **Aso** û ji endamê Navenda Nivîskarên Kurdistanê ye.

Hêzên ewlekariyê Hîwa Botîmar bi armanca girtina birayê wî, Hadî Botîmar girtiye û ji malbata wî re ragehandine ku heya demekê Hadî xwe radestî ewlekariya Komara Îslamî neke, Hîwa nahê serbestberdan. Hadî Botîmar bo derbazbûn ji çengê Komara Îslamî pena bo Îngilîstanê biriye. Biryara îdamkirina Ednan Hesenpûr û Hîwa Botîmar di Dadgeha bajarê Sine de hatiye erêkirin û hêzên ewlekariyê erêkirina biryara îdama Ednan Hesenpûr ji parêzer û malbata wî re îlan kirine. Niha Hesenpûr û Botîmar nêzîkî mirinê ne û jiyana wan di tirs û xeterê de ye. Heke ji bo betalkirin û berlêgirtin ji birêveçûna biryara îdamê û rizgarkirina canê wan ji tirs û gefa mirinê gavên bilez nehên avêtin, Komara Îslamî dê karesateke mirovahiyê ya qerebûnekirî bi ser xelkê me de bisepîne.

Mehkûmkirina Hesenpûr û Botîmar binpêkirina tund ya mafên mirovan û mînakeke eşkere ya cinayeta dewletî ye. Komara Îslamî bi derkirina hikmê daliqandinê ji bo Hesenpûr û Botîmar birayara kuştina 2 mirovên sivîl û bêtawan daye ku niha di girtîxaneya rejîmê de hatine hepskirin û ji bilî tebat û berxwedaniya dîlîtiyê, îşkence û zîndanê çi karek ji destê wan nahê. Du mirovên ku li derveyî girtîxaneyê jî, cuda ji penabirin ji bo hizr, raman û pênûsê xwe bona xuyakirina nerazîbûnê li dijî dîktatorî û azadîkujiya rêberên hikûmetê rêyeke din tu nebûn.

Mehkûmkirina van du kesane bi îdamê di doma wê pêla serkut û çewisandinê de ye ku ji çend mehan berî niha ve dest pê kiriye. Di vê pêla serkut û tepeserkirinê de, çalak û xebatkarên tevgera jinan li cezayên giran ên girtîgehê mehkûm bûn, çalakên bizava xwendekarî, endamên Şêwra Navendî ya “Deftera Tehkîm Wehdet”ê û berpirsiyarên “Deftera Doreyî ya Tehkîm”ê hatin girtin û rojnameya **Hem Mîhen** hatiye daxistin û nûçegihaniya “ILNA”yê hatiye qedexekirin. Hevdem tevî vê kiryara serkutker de, makîna îdamkirina rejîmê yê ketiye kar. Hesenpûr û Botîmar rehînên Komara Îslmaî ne. Ew goriyên azadîkujî û komployên qirêj û mirar ên dîktatoriya hikûmetê bona derbasbûn ji qeyran û kirîza civakî û doza Etomî ne. Kirîzek ku her bixwe pêk anîne.

Komara Îslamî ev du xortên biwêr û azadîxwaz ên welatê me bi îdamê mehkûm kirine, heya jin, mamosta, çalak û xebatkarên mafên neteweyî, bizava karkerî û xwendekarî bitirsînin. Hesenpûr û Botîmar bi îdamê mehkûm kirine heta dengê azadîxwaziya rojnamevan û rewşenbîrên Kurd bifetisîne û xebata demokratîk ya neteweyên niştecih ên Îranê ji bo bidestveanîna mafê wekhev û adîlane û dawîanîn bi ferq û cudahîdananê tepeser bike. Hesenpûr û Botîmar bi cezayê îdamê mehkûm kirine heta berxwdaniya karker, jin û xwendekarên ku niha di girtîxaneyê de ne û li ser bîr ramanên mirovî û mafên destpêkî û bingehîn yên xwe biîsrar in û tekezê dikin û ji bo xuyakirina nerazîbûnê dest yê dane gireva  birçîbûnê, têk bişkînin.

Hevdembûna derkirina biryar îdama rojnamevanên Kurd tevî nimayîşkirina îtirafên televîzyonî, serkut û tepeserkirina çalakên tevgera jinan, kedkaran û girtin û binçavkirina bikom ya xwendekaran nîşaneya êrîşa sîstematîk û pilanrêtî û seranserî ya rejîmê li dijî cudabîr û azadîxwazan e. Nîşaneya vê yekê ye ku hikûmetê hevdem navendên tevgerên nerazîbûnê yê kirine armanc û dixwaze bi zora serkut û çewisandinê pêşiya pêwendiya seranserî ya tevgerên nerazîbûnê bigire. Derkirina hukmên îdam, revandina çalakên karkerî û awayê liv û lebata wan tevî xwendekaran dide xuyakirin ku hikûmet yê ketiye tengasiyê û ji ber xurtbûna hesta tirsê dest yê daye tolhildanê û pêkanîna tirs û xofê di girtîxaneyan û derdora wan. Her çiqas rewşa niha ya opozîsyon û hikûmetê li gor sala 1988’an bi tevahî biferq e, lê divêt em hişyar bin û keys û derfetê nedin rejîmê ku ji bo serkevtin bi ser rezîlî û rûreşiya xwe de, kul û kîna karesata neteweyî û kuştina bikom ya girtiyên siyasî di vî welatî de nû bike û di bêdengiyê de xebatkarên rêya azadiyê bide bin darê îdam û daliqandinê.

Bona ku bela û felaketek wisa dubare nebe, nabe em ji bo xuyakirina nerazîbûn û protestokirin li hember biryara îdamê dereng bikin û rabiwestin. Heke her îro em ji bo serbestberdana girtiyan berxwedaniya giştî  organîze nekin, sibê pir dereng e. Ji ber ku ev kare parastina mafên mirovan û berevanî ji mirovahiyê ye. Eger azadîxwaz bi bersivdana bi vê erk û wezîfeyê de, bi yekdeng û yekîtiyê bixebitin, di hêzek wiha de beşdar in ku bikarin paşdekişiyanê bi êrîşên dîktatoriyê bikin û betalkirina biryara îdamê û serbetsberdana girtiyên siyasî bi ser rejîmê de bisepînin.

**Hêzên azadîxwaz!**

Werin em bi hev re alîkariyê didin hev û bi hevgirtin û yekîtiyê berevaniyê ji çalakên xwendekarî, jinan, karkeran û xebatkarên mafê neteweyî bikin. Werin ji bo betalkirina biryara îdamê hevdeng bin û nehêlin Ednan Hesenpûr û Hîwa Botîmar biçin bin darê îdamê û ji wan kesan ku dixwazin bi şikandina pênûsan û birîna zimanan, temenê rejîmê dirêj bikin, netirstir bin.

Em tev hêzên azadîxwaz û pêşketinxwaz ên welat ji bo hevahengî di rêxistin û organîzekirina karzar ya bibandor di xebat li dijî serberedayiyê, berevanî ji azadkirina girtiyên siyasî û berlêgirtin ji îdama Ednan Hesenpûr û Hîwa Botîmar de gazî dikin.

Em ji hemû organ û parêzvanên mafên mirovan, partî û rêxistinên azadîxwaz û kom û komeleyên navneteweyî dixwazin serbarê mehkûmkirina birayar îdamê, bi awayê bibandor û pêwîst  piştgiriyê ji xebata xelkê Îranê ji bo berçavgirtina mafên mirovan, betalkirina biryarên îdamê û serbestberdana girtiyên siyasî bikin.

**Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê**
**Komele – Rêxistina Şoreşvan ya Zehmetkêşên Kurdistana Îranê**
**Rêxistina Fedayiyên Gelê Îranê**
**Rêxistina Fedayiyên Gelê Îranê(Ekseriyet/Piranî)**

## Gerrek Kurt Di Dîrokê De ...

**Amadekar: Nûredîn Sofîzade**

***16.07.1989:*** **Şêx Mihemedê Xal** kesayetiyê navdar ê Kurd koça dawiyê kir.

***17.07.1985:*** **Mîr Axa Husênî** naskirî bi Mîr Axa Cehangîrî, Fermanderê Pel ji Hêza Şaho li devera Seqizê şehîd bû.

Herwiha **Bayîz Xendan** Fermanderê Pel ji Hêza Mîne Şem, li devera Rebetê tevî Pêşmergeyekî din bi navê **Xalid Ehmedî** şehîd bûn.

***18.07.1985:*** **Mihemed Emîn Îbrahîmî** Fermanderê Deste ji Hêza Mîne Şem şehîd bû.

***18.07.1987:*** **Salar Îbrahîmî** Cîgirê Fermanderê Hêza Zagros li devera Kamyaranê şehîd bû.

***18.07.1988:*** **Sidîq Fîrozî** Endamê Cîgir yê Komîteya Navendî ya PDK Îranê û berpirsê Komîteya Kirmanşanê li navçeya Bilewer a Kamyaranê şehîd bû.

***18.07.1988:*** Piştî 8 salan şerê bixwîn di navbera Îran û Îraqê de, rejîma Komara Îslamî ya Îranê biryarnameya 598 ya Konseya Ewlekariya Rêxistina Neteweyên Yekbûyî pejirand û Xomêynî cama jehrê fir kir.

***19.07.2005:*** Hunermendê mezin yê muzîka Kurdî **Mocteba Mîrzade** di temenê 60 saliyê de çû ber dilovaniya xwe.

***20.07.1974:*** Artêşa Turkiyê êrîş kire ser girava Qîbrisê û piştî şerekî bixwîn karî parekî zaf ji Qîbrisê dagir bike.

***21.07.1922:*** Cemiyeta Kurdistanê bi serokatiya **Mistefa Paşa** li bajarê Silêmaniyê hate damezirandin. Herwiha di heman salê de Kongireyekî giştî hate girtin û **Şêx Mehmûd** wekî Paşayê Kurdistanê hate diyarîkirin.

***23.07.1896:*** **Nasredîn Şahê Qacar** li bajarê Ebdulezîm (Rêy) ji aliyê kesekî bi navê **Mîrza Rezayê Kirmanî** hate kuştin.

***23.07.1981:*** Hunermendê dengxweş yê Kurd Mamosta **Elî Merdan** koça dawiyê kir.

***23.07.1985:*** 6  Pêşmergên PDK Îranê li navenda Ajvan bi navên: **Salih Elîpûr, Elî Îran Nijad, Mihemed Emîn Mehmûdpûr, Ebabekir Mihemedî, Kemal Şêyxî, Elî Soltanpenah** şehîd bûn.

***24.7.1923:*** Peymannameya **Lozan** di navbera Birîtaniya, Fransa, Îtaliya, Japon, Yûnan, Romaniya û Yûgoslavyayê de hate girêdan. Li wê peymanê de Kurdistan di navbera 4 welatên Îran, Turkiye, Îraq û Sûriyê da hate parvekirin.

***25.07.1922:*** Bo cara yekemîn hikûmeta Îranê hêzek mezin ya peya hinarte ser hêzên **Simko**, piştî şerekî giran, Simko rastî têkçûnê hat û Kela Çariyê berda û vekişiya bo Turkiyê.

***26.07.1985:*** **Ebabekir Îsmaîl Nijad** Fermanderê Lik û **Tahir Xizriyan** Fermanderê Deste ji Hêza Aware li Qubad Begiyan a Pîranşehrê şehîd bûn.

***26.07.1987:*** **Ferec Husênî** Fermanderê Lik ji Hêza Şaho li Bêsaranê şehîd bû.

***27.07.1970:*** **Mihemed Riza Şahê Pehlewî** ku piştî serhildana gelên Îranê li dijî rejîma xwe reviyabû Mîsrê, li bajarê Qahîrê mir.

***27.07.1987:*** **Xalid Royan** Fermanderê Lik ji hêza Kêleşînê, li şerê Giresor a Mirgewer de şehîd bû.

***27.07.1996:*** Êrîşa 2000 kesî ya hêzên Komara Îslamî ya Îranê bo ser binke û bargehên PDK Îranê û topbaran û katyoşabarankirina malên Kempa Azadiyê bo heyamê 10 seetan li nêzîk bajarê Koyê.

***28.07.1914:*** Destpêka şerê yekemîn yê cîhanê bi êrîşa Otrîşê bo ser Lehistanê.

***29.07.1986:*** **Kavûs Minberî** Fermanderê Pel ji Hêza Bêstûn li Zêviye ya devera çemê Javero şehîd bû.

***30.07.1985:*** Pêşmergeyên Hêza Hevşar ketne boseya hêzên rejîmê, mixabin 13  Pêşmerge şehîd bûn:

**Seyîd Kamil Heyderî** berpirsê Komîta Şaristana Hevşar**, Ehmed Osmanî** Endamê Komîta Şaristanê**, Mehmûd Şefayî, Mihemed Ezîziyan, Sofî Evlê Cevadî, Ezîz Êsaq Taq, Xalid Mikayîlî, Rehman Resûl Nijad, Sidîq Şirî, Nasir Deştî, Feyzula Ebasî, Seîd Feyzî, Mehmûd Elmas Nijad.**

***31.07.1968:*** Şehîdbûna **Ehmed Şelmaşî (Mela Aware)** endamê Komîteya Navendî ya PDK Îranê li Serdeştê.

Skandalek Nû Ya Dermanfirotina Tirkiyê;

# Dr. Yekta: Xetera Helebçeyekî Nû Heye

**Gabar Çiyan**

***Tirkiyê, bi rêya şîrketên xwe îlacan û xwarinê difiroşe Îraqê. Derket holê ku gellek ji derman û xwarinên tê firotin genî an jî kevin bûne. Ji ber firotina derman û xwarinên kevin û xirabûyî, hemwelatiyên Îraqê têne jehrdayîn. Pisporê pirsê tînin zimên ku Herêma Kurdistanê jî ji ber derman û xwarinên kevin û xirabûyî dikare ketibe bin xetereke mezin.***

***Pirs ne nû ye. Ji zû ve îlac û xwarin tên firotin. Lê şikên li hember sextekariya şîrketên Tirkiyê berî niha eşkere bû û piştî bûyerê kontrolkirina îlacan û xwarinê ji aliyê dezgehên bijîjkiya Îraqê û Herêma Kurdistanê ve xurtir bû. Dezgehên bijîjkiyê li Îraq û Kurdistanê sextekariya şîrketên Tirkiyê eşkere kir. Wezareta Îraqê li ser pirsê notayek protestoyî da balyozxaneya Tirkiyê li Baxdayê. Ji Wezareta Derve a Tirkiyê hate xwestin ku li ser şîrketên dermanfiroş, mercên xebata fabrîkeyên wan, birêvebiriya wan û awayê guhestina dermanan bo Îraqê, zaniyariyê bide Wezareta Tenduristiyê a Îraqê. Ji Tirkiyê heta xwestin ku, rê bide komek doktorên Îraqî ku werin Tirkiyê da ku pirsê ji nêz ve bişopînin. Di nava komê de nûnerên kurda ji Herêma Kurdistanê jî hene. Kesên dixwazin herin Tirkiyê ev in: Dr. Ihsan Jaafer, Dr. Huseyin Al Beer, Dr. Ala Shallan û Mûdirê Sihetê yê Duhokê Luma Hazim.***

***Wezareta Karê Derve a Tirkiyê, bi Mudîrê Tevayî yê Dermanfiroşên Tirkiyê re kete têkiliyê û ji wan zaniyarî xwest. Piştî têkiliyên wezareta Tirkiyê bi şîrketên derman û xwarinên re, Wezareta Karê Derve a Tirkiyê bi ihtîmalek mezin dê bersivek neyênî bide Îraqê. Çavkaniyên tenduristiyê li Tirkiyê û Kurdistanê dane zanîn ku pirs mezin e, skandal ji awira aborî ve pişta xwe dide pereyên mezin. Dema pirs bê kolandin dikare skandalek berfirehtir derkeve holê. Tirsa herî mezin ew e ku şîrketên Tirkiyê bi zanabûn, siheta bi hezaran hemwelatiyên Îraqê û kurda xistibe xeterê.***

***Em, li ser xetera dermanên kevin û çareseriya pirsa îlacan li Herêma Kurdistanê, bi pisporê pirsê Dr. Yekta Uzunoglu re axivîn. Wî li ser pirsê agehdariyên girîng da me. Fermo hevpeyvîna bi Dr. Uzunoglu re:***



**Dr. Yekta Uzunoglu kî ye?**
Di 1953'an de li Farqînê hatiye dinê. 1971 ji bo xwendina bilind tê Fransayê. Li wir zimanê fransî dixwîne. Di sala 1973'an de tê Pragê. Piştî xwendina tendurustiyê, dibe doktor û di 1980 de di gel hejmarek doktor li Kurdistanê dixebite. Piştre tê Almanya. Li wir di avakirina Enstîtuya Kurdî a Parîsê û Enstîtuya Kurdî a Bonnê rolên berbiçav hildigre ser milê xwe. Paşê vedigere Pragê. Dr. Yekta di saxiya Şehîdê nemir hêja Dr. Ebdulrehman Qasimlo de jê dersên aborî werdigirt. Paşê li ser makro ekonomî xebitî, li ser zaniyariya aboriyê kûr bû. 1993 de li gel Serekomarê Çekê Veclav Klaus û hejmarek ekonomîstên wir, li ser bingeha berhema xwe bi navê **Perspektîvên Aboriya komara Çekî** xebatên aboriyê dikin. Ji ber komployekê di sala 1994'an de tê girtin. Ew di sala1997 de azad dibe. Di sala 2006'an de xelata Frantisek-Krigelê wergirtiye. Dr. Yekta zewicî ye, du zarokên wî hene û li Komara Çekê dijî.

**- Çima dermanfiroşên Tirkiyê îlacên xirab, kevin difroşe Îraqê?**

Bersiva vê sualê ev e : Çima Îraqî û dîsa wusa Kurd dermanan ji Turkiyê distînin? Şîrketên tirk li Îraqê wusa jî li Kurdistanê ji xwe re taşeronan peyda kirine, network a xwe ya mafyayî saz kirine, saxiya mirovan bo wan, armanca xebata wan nîn e. Malesef pir kesên ku taşerontî bo şîrketên tirka dikin, di dema dîktatoriya Sedam Husêyn de, dîsa ew bûne ku tîcaretê kirine - yan jî bawen wan -.Yanî bi wêjeya gelerî "caş" bûne û îro ew "caş" xwedan hikmekî berbiçav in di warê "ticaretê" de. Lê tiştê ku tê kirin ji exlaqê / Kodex / ticaretê gellekî dûr e. Ev kes bo qezencên xwe hertiştî difroşin. Ku karên ku ew dikin, bi xwe gorî krîterên mirovatiyê ne firotin e, lê qetil e.

Hem mirovan qetil dikin û hem jî li serda dirav qezenc dikin.
Di her welatekî de ticareta dermanan li bin hukmê qanûnan, li bin kontrola saziyên dewletî de ye. Berspirsiyarê vê bûyera tirajîk li Kurdistanê berî herkesî, pêşî tacirên tirk û taşeronên wan in, paşê kesên ku bên rexnekirin karbidestên herêmê ne. Çawa hikumetekî destura îtxalkirina dermanan ji welatekî weka Tirkiyê dikare bide? Ew Tirkiye ku bingehê siyaseta xwe li ser nijadperestiya dijî hebûna gelê Kurd ava kiriye! Ev xeletiyên wisan cihê pirsê ye.

**- Dermanên kevin û xirabe ji awira bijîjkî ve çi bandorê li Kurda dikare bike?**

Piraniya dermanan bi xwe jehr in. Mînak: wek antîbîotîk. Lê ku dozajê derman bo kuştina mîkrob û vîrûs be, ew derman e, lê ku dozaj zêde bilind be dibe jehr bo mirovî. Dozaja bilind dikare mirovan bikuje an jî bi kêmanî hinek organan texrîb bike.
Dermanên Kevin: Hinek derman in ku kevin dibin hikmê dermanbûnê winda dikin. Lê hinek jî dibin jehr.
Dermanên xirab: Dikare mirovî nav demekî kurt de bikuje, lê dikare texrîbatê bide hinek organên mirovî. Ev texrîbata organan xwe piştî demekî dirêj yan demekî kurt nîşan dide, bi şêweyên cure-cure.
Ev dermanên xirabe bi giştî zirarê didin kezeba reş û hinek jî gurçikan. Ev zirar wek nexweşiyekê xwe dikare piştî salan jî nîşan bide. Hinek derman dikarin dervayê wî da genê mirov xirab bikin. Wê demê zirara wan di neslên din de xwe nîşan dide. Yanê, dikare xwe piştî 5-10 salan di zarokan de nîşan bide û zarok seqet - yan jî aliyê canî yan jî ji aliyê ruhî - werin dinyê. Hûn dikarin dehhezaran zarokên seqet texmîn bikin? Wê demê karbidestên îro wê di ser kar û hukmê xwe de nebin, dibe ku nejîn jî, lê zarokên seqet wê bi wî seqetiyê mehkûmê jiyanekî bi êş û kul bin.
Derveyê wî jî hinek dermanên xirab dikarin zirarê bidin rihê mirovan. Ger imkana çûyîn û xebata azad hebûya min dê çend pisporan bişanda Kurdistana Başur û Bakur ku lêkolînekî li ser "xwekuştiyan" bikin. Lêbikolin gelo ew keçên ciwan ku xwe dikujin, dest davêjin jiyana xwe, xwe dişewitînin, beriya van depresionan derman xwarine yan na, ger xwaribin çi, kîjan derman xwarine, xwîna wan de perçeyen kîjan madeyên kimyewî hene û hw û hwd… . Ji ber ku hinek dermanên antîdepresiv ger xirab bin, dikarin depresione hê qurtir û xurtir bikin û bibin sedemê gavên "har", wek xwekuştin. Di vê warê de berpirsiyarî kî mezin para doktrorên Kurd ê Herêmê ye. Ew bi xwe dikarin li ser van pirsan grûbên xebatê saz bikin û lê bikolin.

Ta kengê wê hêvî û leviya alîkariyê ji derva bin? Wek tê zanîn Viyetnamî di nav şerê malxirab de xebata xwe ya ilmî didomandin, kurd çima nakin? Piraniya belediyên Kurdistana Bakur li destê welatparêzên kurd de ye, li Başur jî xwe dewlet ew in. Çima ji sulane xwe yên jiyanê re xwedî dernakevin?

Ji alîk- 80.000-100.000 Pêşmerge û deh hezaran Polîs- quwetên asayişê - tên xwedîkirin ku herêma Kurdistanê biparêzin, lê ji aliyê din weka ku singê gelê xwe vekiribin û dibêjin werin me bi perê me bikujin. Dermanên xerab dikarin sedem û sebebê trajedîkî ji ya Helepçê mezintir bin.

**- Di rewşa îro de pêwîstiya Kurdistanê bi febrîkeya îlacan heye, an na? Çima heye?**

Çar aliyê herêmê rejîmên har in. Pêwîst e berpirsiyarên Herêmê saxiya gelê xwe teslîmî qederê, teslîmî peyayên van rejîmên har û hirhop nekin. Ger derman ne ji ciranan, lê ji welatekî dur jî bistînin, tu garantî nîne ku, destê hinekan negihîje wan deverên dûr û derman rastî derman be.



Çareserkirina derman wek sazkirina hezên parastinê bo herêmê re giring e. Derman ne televîzîon, kompîtur yan otomobîl e ku xirab derket tenê zirarê bide mirovekî. Ji ber ku derman ne derman be saxî û canê mirovî ji dest diçe û vegerê can nîn e. Divê ku karbidestên Kurdistana Başûr pirsa derman û xwarinê bi destê xwe û di Herêmê de çareser bikin. Ger ev çareser nebe, nûjentirîn çek jî nikare gelê wê Herêmê biparêze.

**- Ji awira ekonomîk ve, çiqas çûna Herêma Kurdistanê ji bo îlacan heye?**

Kes nizane. Hinek derman hikûmeta Baxda finanse dike, hinek yê herêmê û serda gellek derman jî bi qaçaxî tên firotinstendin. Statîstîk nîn e. Lê gor texmînên gellek gilover ev hejmar ji çend sed milyon dolarê Amerîkî kêmtir nîn e.

**- Ji bo Herêma Kurdistanê bibe xwediyê fabrîkeyê îlacan, derman li Kurdistanê bên çêkirin, çi xebatên bingehîn pêwîst in?**

Berî hertiştî divê Parlementoya Kurdistanê qanûnan di vî warî de pêk bîne û hejmar û navên dermanên ku wek derman qebûl dike, biweşîne. Firotin û bikaranîna dermanên din jî qedexe bike. Tevekên welatên nûjen de derman li bin kontrola dewletê de ye. Wek tê zanîn li Swêdê ne tenê derman li bin kontrolê hikûmetê de ye, lê dîsa wusa dermanxane bi xwe jî yên dewletê ne.

Dibe ku pisporên Parlemantoya Kurdistanê di vî warî de tune be. Lê bo pêkanîna lîstekî **dermanên bingehîn** pewîstiya wan bo pisporan jî nîn e. Saziya Tenduristiya Neteweyên Yekbûyî deh salan e di vê warê de kar dike. Parlementoya Kurdistanê bo qanûnan dikare ji imkanên vê saziyê istîfade bike. Wek tê zanîn bo çareserkirina piraniya nexweşiyên mirovan di şertên welatên paşdemayîn de **tenê 150-180 derman têr dike**. Îro di Kurdistanê de hezaran derman ji dehan welatan heye. Ev xeterekî gellek mezin e. Navê van 150-180 dermanan nas in. Piraniya saziyên xêrxwaz bi van dermanen bingehîn di welatên paşdemayî de kar dikin û di xebata xwe de gellek ser jî dikevin. Bo çêkirina van dermanên bingehîn bo 5 milîyon gelê Kurdistana Başûr fabrîkekî tenê bes e. Ku Hikûmeta Herêmê bixwaze fabrîkakî wusa ji aliyê teknolojî de di nav 6 mehan de dikare ava bibe, ger avahî hazir be .

**- Ji bo avakirina fabrîkeyên îlacan çûna aborî çiqas pêwîst e? Kîjan welatên mezin li ser pirsê pispor in û mercên têkiliyek çawa li gorî berjewendiyên Kurda ye?**

Fabirîka her wusa şîrketên navdar aliyê kêm bi 500 milyon dolar çê nakin. Lê bizanebûn dikare fabrîkekî wusa bi 20-30 milyon dolaran ava bibe. Wekî li Tanzaniya ye. Çareserkirina vê pirsê ne zehmet e. Bi 4 pisporên gellek baş di 4 waran de dikare çareser bibe :

1. Pisporekî tanduristî û eynê demê de dîplomat bo danûstendin bi saziya tendirustiya Neteweyên Yekbûyî, saziyên xêrxwazên navnetewî di warê tandirustî de, bo danûstendin li gel welatên peşdaçûyî û hwd.
2. Pisporê dermanasî -farmakolojî -
3. Pisporê teknolojiya dermançêkirinê
4. Pisporê tîcareta pêwîstiyên hevîrê dermanan. Ji xwe pisporên baş girûpa xebata xwe bi xwe çê dike û endamên girûpê xwe jî bi xwe peyda dike. Di vê warê de ev pispor dikarin ji pisporên Kurdên Ewropî istîfade bikin. Malesef deriyên Herêma Kurdistanê bo van pisporên Kurdên xerîbiyê re ta niha girtî ye. Sedemê pêşdeçûyîna Îsraîl ji destpêkê ta niha ew e ku Îsraîl kîjan cihû ji kîjan quncika dinê here wir, wî wek heoli-hemwelatiyê xwe dikin singê xwe. Ev helwest mixabin e ku hê jî li Kurdistana Başur nîn e.

Dibe ku di destpêkê de bi hinek şîrketên baş ê Hindistanê re bo demekî têkiliya ticarî pewîst be . Û dibe ku çend seferiyên zanînê bo Tanzaniya û Hindistanê pewîst be, ji ber ku ev her du welat pirsên xwe yên bingehîn ê dermanan bi awakî baş, rasyonel çareser kirin / kirine û dikin û ji bo Kurdistanê dikarin minak bin. Bo cihazên hesas Koreya Başûr ku leşkerê wan li Kurdistanê ye, welatekî bi îsabet e.

Fabrîkayek wusa li Kurdistanê de dikare di webeyê navîn de bersiva pewîstiya tevekê Îraq jî bide û bibe navenda farmakolojiya Îraqê. Lê pêwîst e hinek fireh û dûr were fikirandin.

(Zarathustra News)

# Jordeçûna 12 Ji Sedê Ya Asta Berdan Di Îranê De

Daxwaza berdanê ji zewicînê zêdetir bûye û gihîştiye %12/1'ê. Ev yeka ji aliyê Seyîd Hesen Mûsewî, Birêveberê Giştî yê Zirardîtiyên Civakî di hevpeyvînekê de tevî nûçegihaniya Fars de ragehand, asta berdanê bi nîsbet du salên borî %1/4 jorde çûye û di vê derheqê de Jin zêdetir ji mêran daxwaza ji hev veqetiyanê dikin. Yanî di nava 100 kes daxwazkarê berdanê(ji hev veqetiyanê) de, 48 kes jin, 23 kes mêr û 29 kes jî mêr û jin bihevre vê daxwaziyê dikin. Temenê ew zewacên ku li encam de digihîje berdanê, %52 ji wan kêmtir ji 25 salan e. Hewceyî gotinê ye ku li gor serhejmariyên fermî, navinca temenê zewicînê di nava jinan de 27/9 sal e û di nava mêran de 29/7 sal e.



**Jêder: malpera "irwomen.com"**

# Li Silêmaniyê Di 6 Mehan De 93 Jin Û 29 Zilam Bi Rêya Şewitînê Ve Jiyanê Xwe Ji Dest Dan

Li gor statîstîkekê ku di "PUKmedia" yê de hatiye weşandin, li parêzgeha Silêmaniyê di navbera 6 mehên borî de, 893 bûyerên şewitandinê bi sedemên cuda cuda hatine encamdan û 122 kesan jî jiyana xwe ji dest dane. Li gor encamên statîstîkê, dîsa di piraniya bûyerên şewitandinê de jin serekî ne û ji 122 kesan, 93 kes jin in.




Li gor statîstîkê 467 jin û 426 mêr û bi sedemên cuda cuda şewitînê. Hêjayî gotinê ye her çend ku sedemê xweşewitandina jinan pirsgirêkên civakî ne, lê dema ku ew bûyer tên lêkolînkirin, sedemên wan bûyerên jî bi rastî nayên aşkerekirin.

# DEMOKRASÎ



ADAR JIYAN
adarjiyan@mynet.com

Wekî hemû têgînên civakî û kemelayetî ku tenê wateyeke rastîn a her têgînê heye. Bêşik wateya demokrasiyê jî ya rastîn heye. Belê ligel vê rastiyê jî dîsa her kes li gorî dilê xwe wateyeke nû li demokrasiyê bar dike û wê li gorî berjewendiyên xwe yên rojane û demdemî rave û şîrove dike.

Wekî civakên dinê yên paşmayî -wekî civaka rojhilata navîn- têgîna demokrasiyê bi ser re û bi awayekî teng û req şîrove dikin. Ji bo wê çanda demokrasiyê li gellek deverên dinê zêde pêşve neçûye û bi azweriyeke mezin nehatiye/nayê pejirandin. Demokrasî li gellek welatan, bi rê û rêbazên zoran û çêkirî ji jor de li ser gel hatiye ferzkirin. Heçku demokrasî şêwaza jiyaneke nûjen e. Ji bo wê jî divê ji dil û can were pejirandin û bikaranîn; ne bo darê zorê.

Demokrasî, ji hêla civakên dinê ve wekî têgîneke nûjen bi du awayan tê şîrovekirin. Yek, şîroveya Rojava(Ewropayê) û ya din jî şîroveya Marksîzmê ye. Bi rastî di serî de civakên Rojhilata Navîn û her wiha gellek civakên paşmayî, bi qasî ku demokrasiyê baş fêm bikin û wê ji bo xwe wekî diviyatiyeke çarenîn bibînin, serwext nebûne. Navê demokrasiyê bihîstine belê bi ruh neanîne. Li vê erdnîgariyê gellek kes û civakên demokrasiyê xeter û tirsnak dibînin jî hene. Heta qet hewcetiyê bi demokrasiyê naynin û dibêjin "Demokrasî mirovan ji rê derdixe û wan berdide hevdû" Heta ji hêla gellek kes û civakên Rojhilata Navîn ve, demokrasî demeke dirêj wekî fen û fûtên civakên xwedênenas û lîstîkên gawirane hatiye dîtin.

Li welatên paşmayî û nemaze jî li Rojhilata Navîn, gava ku demokrasî tê gotin sê tişt tên fêmkirin. Yek, pergala sazûmana parlamento, du pirepartîtî û ya siyan jî hilbijartin e. Li gorî van civakan ku ev hersê tiştên ku wekî rêbazên demokrasiyê tên dîtin hebin demokrasî jî heye. Belê ev xapandineke mezin e. Lewre, ev hersê tişt ne rêbazên demokrasiyê ne; ev navgînên ku demokrasiyê pêk tînin in. Alavên ku mantalîteya pireparêziyê pêk tînin ev hersê tişt in. Ruh û kakilê demokrasiyê pireparêzî ye. Çi ye pireparêzî? Li gorî vê rêbazê, tu îmtiyaz û cihêwazî di navbera tu bîr û baweriyan û tu fikr û hizran de nîn e. Her fikr û raman li gorî xwe hêjayî parastin û vegotinê ye. Û nirxdar e jî. Mafê her kesî heye ku fikr û hizra xwe derbibire, bîr û baweriya xwe vebêje, bibe xwedî erk.

Li gorî azîneya pireparêziyê, divê tu sînor ji fikr û hizra mirov re neyê danîn. Mafê tu kesî nîn e ku bi hinceta qedexekirinê rabe bibêje "ev fikr û raman çewt e, ji bo wê bila tu kes guhê xwe nediyê." an jî wekî fikreke xisaram destnîşan bike. Bo nimûne, parastina mafê azadiya ramanê an jî mafê derbirîna hest û baweriyên arizî li gorî hin kesan rast, belê li gorî hin kesan jî şaş e. Çi rast û şaş dibe, divê tu bîr û bawerî û tu fikr û raman qet neyên manîkirin û qedexekirin. Çendî şaş û fahş dibin, bila bibin(li gorî me) divê neyên manîkirin.

Li gorî rêbazên demokrasiyê, hemû fikr û bawerî têne gotin û vegotin. Belê pejirandin û nepejirandina wan li gorî biryara mirovan diguhere. Jixwe demokrasî jî ev e.

Raman û bawerî du tiştên veşartî ne. Tiştê ku tê manîkirin û qedexekirin ne bîr û bawerî an jî fikr û raman e; derbirîna wan e. Derbirîna wan wekî sûc tê qebûlkirin îro. Di demokrasiyê de ne sûcekî fikr û baweriyê heye û ne jî fikr û baweriyeke sûcdar. Di demokrasiyê de ne bîr û fikr û ramaneke rast heye û ne jî bîr û bawerî û fikr û ramaneke şaş. Tiştên ku li gorî hin mirovan rast têne dîtin, li gorî hin mirovên din jî şaş têne dîtin. Ji bo wê, di demokrasiyê de her mirov dikare bîr û baweriya xwe û fikr û ramana xwe bi serbestî derbibire û bi mirovên din re parve bike. Lewre gellek bîr û baweriyên ku ji hêla me ve wekî rast têne qebûlkirin ji hêla kesên pêşberî me ve wekî şaş têne dîtin. Her wiha fikr û raman jî wisa ne.

Bi rastî, wekî ku li jor jî hate diyarkirin, tiştê ku tê qedexekirin ne bîr û bawerî an fikr û raman e. Lewre, heta ku fikr û raman neyên ser ziman, tu kes nizane kî çi difikire an bi çi bawer dike. Lihemberderketin û manîkirina, ne li dijî ramîn û baweriyê ye. Jixwe ne pêkan e jî. Lihemberderketin û manîkirina derbirîn û vegotinê bi xwe ye. Ew jî bi xwe re gellek pirsgirêkên mezin tîne. Ji bo wê, divê derbirîna bîr û bawerî û fikr û ramanê, neyê qedexekirin; berevajî wê, divê qedexekirin û manîkirina wan were qedexekirin.

Di şert û mercên îroyîn de, rêbazên demokratîk an jî demokrasiya rastîn kilîda hemû deriyên xêrê ye. Û demokrasî çareseriya hemû pirsgirêkên dinê ye. Belê hê jî gellek kesên ku demokrasiyê wekî pirsgirêk dibînin, hene. Ew kesên ku wisa difikirin û li hemberî demokrasiyê derdikevin, an di wateya demokrasiyê de negihîştine an jî ji ber ku demokrasî pergla wan a stembar û sûcdar serobin dike, lewma li hember derdikevin

Demokrasî, pêdivî û diviyatiya rojane û mayînde a dem û serdema îroyîn e. Demokrasî nirxê tevê mirovahiyê ye. Tiştên ku têne serê mirov û mirovahiyê ne ji ber hebûna demokrasiyê ye; ji ber tunebûna wê ye.

*Helbest*

# Duh Êvarî



**SADIQ ESKERÎ**
**sadbes@yahoo.com**

Duh êvarî gava tav diçû ava
Ez ketim nava karvanê xeyalan
Bahoza hesretan
Pêlên bîranînên rojên çûyî.
Duh êvarî gava şevqa tavê winda
bû
Hesretan ez li hembêz kirim
Kovanan di hinavên min da govend
gêran
Kaniya rondikên çavên min hirikî

Duh êvarî gava tarîtiya şevê hat
Ez ditirsam bê we herim rê
Pêyên min sist û bêhêz bûn
Destên min sar û cemidî bûn
Çavên min li benda rêya we bûn

Duh êvarî gava herder zulmat bû
ji tarîtiyê
Ez ketim bîriya rojên çûyî
Van rojên ku em bi hevre bi
govendê diçûne şerê tarîtiyê
Van rojên ku em bi hevre bi
keniyê diçûn şerê mirinê
Van rojên ku em bi hevre bi
evînekê dijiyan û bi tîrekê dimirin

Duh êvarî gava ez bi xeyalên
rojên çûyî bûm heval
Hesretan dilê min mîna welatê min
kirin parçe parçe
Mîna kale birên min çawan kêr
xistin cergê diya min
Rehim nekirin bi hevalîtiya me
Ji hev qetandin dilê me
Ji darvekirin evîna me
Kulan tirba hezên me.

***Têdîtin û Helwestek***

***Têdîtin: xwendewanên hêja! Li hejmara berê ya agirî de me hevpeyvînek tevî Fatih Salihî weşand. Gotinên navhatî tenê raya wî ye û ev bersiva jî rayek din e ku nivîskar bi xwe jê berpirsyare.***

***Agirî bi tu awayekê li vê derheqê de berpirsyar nîne.***

# Bersivek Ji Bo Gotinên Fatih Salihî Li Ser Hunermend Behmen Qubadî

**Şerîf Felah**
**Wergerandin/Rondik**

Xwendevanên hêja:

Ev gotare bersivek e bi hevpeyvîna Kek Dara Natiq tevî birêz Fatih Salihî derheq rewşa şano û sînemaya Kurdî, ku di hejmara berê ya rojnameya Agirî de çap û belav bû.

Ez naxwazim û cehdê jî nakim ku di vê gotarê de wekî kesekî pispor û lêzan li warê şano û sînemayê de, dîtin û nêrînên birêz Fatih Salihî rexne bikim. Li restî de rexneya min ji parek ji hevpeyvînê li dor şikandina kesayetiya derhênerê jêhatî û bişiyan yê Kurd, birêz Behmen Qubadî ye û herwiha ronkirinek jî li ser tevlihev kirina hin rastiyan û ev cehd û têkoşînên ku heya niha di vê pêxemê de hatine dayîn. Ez jî tevî Kek Fatih hevdeng im ku neteweya Kurd heya niha ne xwedî sînemayek serbixwe ye û herwiha hemû ew alav û hewcehiyên modern ku sînemayek nûjen, îroyîn û pirofişnal jêre hewce ne, me ninin. Rast e ku Kurd xwedî nawendeke akademîk, Kolêj û zanista sînemayî nine, lê bi xebat û têkoşîna dilsoz, sînemakar û derhênerên wekî: Yilmaz Gûney, Behmen Qubadî, Cemîl Rostemî, Mehdî Omîd Huner Selîm û ...em xwediyê bîr û hizra sînemayî ne û bingeh û xîmê wê hatiye danîn.

Kek Fatih di bersiva pirsiyarekê de ku dibêje tu bawer î ku sînemaya Kurdî di sedsala 21'an de kariye pêşketinek berbiçav bi xwe bibîne?

Bi awayekê ku nizanim sedema wê çiye, xwe li rastiyan didize û dibêje: "Eger nîşandana êş û bedbextiya gelê Kurd û paremayîna li warên çandî, civakî, siyasî û aborî de dibe janrek bo sînemaya Kurdî, ez bi xwe hez ji vê sînemayê nakim". Ez li vir de naxwazim hez û hêviyên Kek Fatih bikujim û bibim bi nûnerê wî û bibêjim ku divêt tu hez jê bikî, lê pirsiyar eva ye ku ger rojekê sînemaya Kurdî derkeve holê, ji bilî bedbextî, hejarî û ew tirajidiya û rastiyên ku dujminên me bi ser Kurdan de anîne, çi tiştek dinê heye ku bikin bi Janr bo sînemaya Kurdî? Gelo baskirin ji kultur, rewşt û tîtal û veguhastina rastiyên civakî û aborî ji bo raya giştî guneh û tawan e? Ma gelo çand û huner, şano û sînema xwediyê nîşandana êş û azara civakê nînin? Ma gelo huner bo xelkê nîne? Yan jî renge Kek Fatih bawerî bi mekteba **"Parnas"** anku "Huner ji bo Huner"ê hebe? Kek Fatih her li doma bersiva vê pirsyarê de ji ber wê ku dixwaze tiştên nebaş bizeliqîne ser kesayetiya sînemakar û derhênerê bişiyan û bi nav û deng yê Kurd, Behman Qubadî, **dibêje:**



**"bi çêkirina fîlmek bi zimanê Kurdî ku heta bîr û hizra wê ji Kurdî nîne, em xwediyê sînemaya Kurdî nînin, nizanim çima ziman û hizra wan fîlman Kurdî nîne?**

Başe xwa bi zimanek din û kesek din nehatiye darêtin, divê bi çi fikrekê be û qala çi tiştekê bikin ku bi gorî dilê Kek Fatih be? Gelo ma veguhastina ceribîna **Halîwod, Balîwod** û hizr û ramana welatên biyanî bo qada hunera Kurdî bi awayekî siqet û bi zor nîşandana bi xelkê dibe fîlma Kurdî? Yan di cihekî din de xwazyarê guherîna ramana derhênerên Kurd e li ast rastiyan û zirûfa niha ya Kurdistanê. Ku nizanim rastî xêncî wê ku dujminan kirine bi behra xwînê û goristan, hejarî û destkurtiyê jî pêşiya xelkê girtiye yan jî kasibkarek ji bo destveanîna pariyek nan canê xwe ji dest dide. Yan jî bi sedema hisara mayînan ku her rojê dest û pêyê kesekê/î difirîne û roj nîne ku bûyerek dilêş lê çê nebe, çi tiştek din heye ku sînemakar ji çevê kamerayê ve nîşana dunyayê bidin? Neteweya Kurd di vê qonaxê de jî hêj li pey nîşandana şonas û nasnameya xwe de ye, em meraqa xwe nasandinê dikin, heya ku pirs û meseleyên biyanî û derveyî me, eva xwexelitandin û dem hederdan e.

Kek Fatih dîsan rûyê axavtina xwe dike ser Behmen Qubadî, derheqî destkevt û serkevtinên wî yên cîhanî ku di festîvalên hundirîn û navneteweyî de bi dest xistine.

Dibêje: "Bi raya min ew destkevt armancek din li pişt heye ku li vir de ez naxwazim bi tu awayekê qala wê bikim". Vir de nerasterast Kek Behmen Qubadî bi vê tawanbar dike ku armancek din heye û raman û bîrek din li pişt de sekinî ye. Wate ji aliyê kes yan aliyek din ve tê haydan û jêre tê diyarîkirin ku xêncî Kek Fatih, tu kesek din agehdarê vê sirrê nine û naxwaze rexneya xwe jî bi eşkere bîne ziman û vê sirr û tişta nepenî û veşartî eşkere bike heya ku hemû xelkê Kurdistanê jî jê haydar bibin. Ez wekî xwe li gel wê rayê de ninim ku divêt em tenê pesna kesayetiyên karîzma û bijardeyên xwe bikim û şaşî û kêmasiyên wan berçav negrin û rexneyê ji wan negrin. Belkî ger em rexneyê ji wan digrin, divêt li gor belge û faktên diyar û lojîkiyane bin, ne eva ku ji xwe re em kesayetiya xelkê yan kesekê/î teror bikin û karên hunerî û xebatên dilsozane yên wî/ê piştguh û mandel û heta wî/ê tawanbar jî bikin.

Ev kultura li nava hinav, hundir û li saykolojiya Kurdan de ye ku dahênan û afirandina bijardeyên xwe bi kêm dizanin, biyaniyan hembêz dikin û bi bejna wan de dixwînin, fikr û ramana wan jî dikin bi rêbaza xwe û derbasbûn û ladan ji wê jî guneh û tawan dizanan.

Başe meger Behmen Qubadî û ew kesên ku di warê sînemayî de destkevtên cîhanî bidest xistine, ji bilî nasandin û nîşandana êş, azar, belengazî û bedbextiya gelê Kurd bi cîhan û bîr û raya giştî armancek din jî hebûne ku li cihê destxweşî û xelatkirinê dibe kincên buxtan û tawanan li wan bikin.

Kek Fatih dibêje: cihê keyfxweşî û rizamendiya neteweya Kurd e ku Kurdek di asta navneteweyî de dikare bi baştirîn awa û metodê xwe derxîne. Divêt em bibêjin ku Kek Behmen Qubadî xwe nedaye nasîn, ji ber ku azar, xem û janên neteweyek 40 milyonî li ser destê xwe û ji rêya lîstikvaniyê nîşanî dunyayê daye, ji rêya zarokan ve kek Fatih bi xwe jî alîgirê mafê wan e û mijûlê karê perwerdehiyê ye û di vî warî de şareza û pispor e, di hemû fîlmên Qubadî de ekterên sereke, ektîv û rola sereke jî dilîzin. Qubadî wijdanên nivistî hişyar kirin û civaka mirovahiyê hejand ku çendîn xelatên navneteweyî jî wergirtine. Wî hewceyî bi xwe derxistin û xwe mezinkirinê nin e, çunku her yekem fîlma sînemayî ya Kurdî têra xwe navhatî bi dunyayê da nasandin. Na, belkî eva ramana Kurdane, azadîxwazane û mirovdostane ya Behmen Qubadî ye wî hay dide ku kameraya xwe bavêje ser milê xwe û dûr ji pirs û hela hela ya nav bajaran de, li nava gund û li ser sînorên têldirîkirî û li nava qadên mayînan de wêne û rûçikek bihest û balkêş ji neteweya Kurd nîşan dide ku bala festîvalên navneteweyî û navendên akademîk yên zanistî û sînemayî bo aliyê xwe û doza Kurd rabikişîne û wijdanên nivistî hişyar bike. Bi awayekê ku kesayetî û pêgehek cîhanî û hunerî da Behmen Qubadî û di çendîn festîvalên navneteweyî yên sînemayî de kirin bi dadvan û zêrevan. Birêz Fatih Salihî di doma hevpeyvîna xwe de li cihekê dibêje: "Kek Behmen karî bi awayekî herî baş xwe nîşan bide, lê bi gorîkirina neteweya xwe". Lê bila Kek Fatih bersiva vê pirsyarê bide ku tevlihevkirin û

veşartina rastiyan di çi nirxekê û li pêxema çi de? Tu kes û aliyek bi rexneya usûlî, bingehîn û zanistî naşikêt, belkî dibe sedema pêşketina wî/ê. Lê piştguh avêtin, girîngînedan û înkarkirina karên dilsozane, bêqîmet nîşandana hunerê, tawanbarkirin û şikandina kesayetiya xelkê, dûr e ji exlaqê rexnegirî û karê rojnamevaniyê, herwiha bêdengî li hemberî vê qezawet û daweriya bêbingeh de kemkarî û xemsarî ye li hemberî huner û kultura neteweyekê.

Kek Fatih îdia dike ku Behmen Qubadî bi êş, azar, belengazî û hejariya gelê Kurd re bo xwe nasandinê dan û standin û bazerganî kiriye, ku hevoka han cihê helwest û heyrîmanê ye! Divêt em bibêjin ku Kek Behmen ne tenê bi vî awayî nelivî ye, belkî sînor û ew taboya bitirs şikand, êş û azarên neteweyek zulmlêkirî jî ji bêdengiyê rizgar kir û ronesansek lidarxist ku bi xwe bûye xwendingehek sînemayî.

Baş e meger baskirin ji rastiyên civaka em bêjin herdem, qonax û serdemek çand û hunerê berhem tîne, bi hebûna wan hemû jan, azar û pirsên siyasî û civakî yên borî û niha yên Kurdistanê, gelo ma çê dibe ku bihê û bas ji eşqeke fantezî ya li navbera keç û kurekê li nava bajaran de bike? Meger mijar û hêvênê hewce û bi hestir ji wana ku Kek Behmen bi bedevî destnîşan kirine û anîne berbas, li holê de ninin? Li beşek din ji axavtinên wî derheq Behmen Qubadî de, bi xatircemî ve dibêje: “ger ez bixwazim tenê li warê sembolîk ve fîlma **“Kusî jî dikarin bifirin”** şirove bikim, bêguman hûn dê bi nirxandina xwe de li hemberî Behmen Qubadî tûşî dudiliyê bibin”.

Ez bawer im niha şûnde ger Kek Fatih bihê û li ser berhem û kesayetiya her bijarde û rewşenbîrekê destê xwe bavêje qelem, dê raya hemû xelkê Kurdistana Îranê û heta cîhanê jî dê li ser wî kesî/ê bê guherîn.




Kurdistanê şerm e yan tawan? Ku Kek Fatih wan tawanan dide Kek Behmen û dibêje di fîlma “demek ji bo Hespên serxweş” de Kurd vegerandine asta hovên Amazonê. Ji ber ku divêt em bibêjin ku eva Kek Fatih e ku neteweya Kurd bi hovên Amazonê dişibîne. Çi cihek ji wê fîlmê û kîjan wêne û sêkansa wê fîlmê dûr e ji rastiyên civaka Kurdistanê? Kek Fatih karê sînemakar û derhênerê şovenîst yên ne Kurd ku kultura neteweya Kurd ji xwe kirine hêcetek ji bo xwe nîşandan û xwe nasandinê, ji fîlmên Kek Behmen pê baştir e. Gelo eva ye xelat û padaşa xortekî dahêner û hizirvan yê Kurd ku xem û azarên neteweya wî jêre bûne hêvî û wekî bi xwe dibêje: “hemû fîlmên min li ser hev nabin bi 10 demjimêr”, başe ma dîroka belengazî û azarên neteweyek bindest û çewisandî ku her çirkeyek ji wê, fîlmekê hildigre, ka dê bi 10 demjimêran bihê nîşandan? Kek Fatih destnîşan ne kiriye ku divêt Kek Behmen çawa bifikire û li karên hunerî û sînemayî yên xwe de divêt çi tiştekê bike janr ji bo karkirinê. Belkî ew hatiye û tevî sînemaya **Halîwod** û **Balîwod**ê dinirxîne ku ji du civakên bi tevahî ji hev cuda de dijîn. Divêt

Kek Fatih bi xwe jî baş dizane ku niha nêrîna xelkê Kurdistanê, Îran û heta cîhanê jî li ser kesayetiya Behmen Qubadî û karên sînemayî yên wî çawan e. Kek Fatih bi eşkere dixwaze nêrîn û dîtina civaka Kurdistanê li hemberî Kek Behmen û hunera wî de biguherîne, û daxwazê ji Kek Behmen û derhênerên Kurd dike raya xwe bi nîsbet rastî û zirûfa niha ya Kurdistanê biguherînin, lê nabêje çawa bifikir in.

Di dawiyê de vê hêviyê dixwaze, vêca nizanim ka ew xwaziya wî ji dil tê yan na, belkî Kek Behmen bibe xwediyê xelata Oskar, lê bi mercekê ku wekî xwe û ji bo Kurd bifikire, ku dîsan jî tawan û tometek din li wî hunermendê dilsoz û mirovdost dide û li gor îdeayên navhatî, divêt Kek Behmen bi pîjikê aliyekê kar bike û bîr û ramana wî jî hatibe qorixkirin û ji bo neteweyek ne Kurd bifikire ku eva jî hilgirê mijarek pir ji pirsgirêk e. di dawiyê de ez hêvî dikim Kek Fatih Salihî rexneyên min bi dilek vekirî bipêjirîne û carek din jî bi çavê wijdanê ve mêzeyî gotinên xwe bike û çavên xwe jî li hemberî rastiyan de nemiqîne, hêviya serkevtinê jêre dixwazim.

# Koça Dawiyê Ya Endamekî PDK Îranê Li Urmiyê



Roja 23.04.1386 (14.07.2007)’an, endamekî PDK Îranê bi navê Fexredîn Husênî, kurê Mihemedseîd, temen 28 salî û yê gundê Rajan a derdora Urmiyê, li nêzîkî gundê Xoşeko ya Tirgewer, bi sedema lihevdana otombêlan bi giranî birîndar dibe û mixabin piştî çend seetan jiyana xwe ji dest da.

Hêjayî gotinê ye ku Fexredîn yek ji endamên biemeg û çalak yê PDK Îranê bû.

Em jî li ser navê Malbata Weşana Agirî û tev Kadro û Pêşmergeyên PDK Îranê, serxweşiya xwe pêşkêşî kes û karên Fexredîn Husênî û xelkê gundê Rajanê dikin û xwe di xem û taliyên wan de şirîk dizanin.

Riha wî bi bihişta berîn şad be

# Hejmara Nû Ya Kovara Werzî Ya “Tîşk” Çap Û Belav Bû




Di van rojan de, hejmara nû (19) a kovara werzî ya “Tîşk” ku Komîsyona Perwerde û Lêkolînê ya PDK Îranê diweşîne, çap û belav bû.

Kovara “Tîşk” ku kovarek siyasî û ronakbîrî ya giştî ye, di vê hejmara xwe de babet û gotarên jêr bixwe girtine:

Peyva Hejmarê, Lênihêrînek li ser wateya berjewendiya neteweyî, axavtina Rojhilatnasiyê, demokrasî biha û piratîka wê, basek li dor polîtîka, nasyonalîzma Erebî, Faşîzm û geşekirina werzişê.

Em jî weke Malbata Weşana Rojnameya Agirî, destxweşiyê dibêjin tev xebatkarên kovara “Tîşk”, berpirs, Kadro û Pêşmergeyên Komîsyona Perwerde û Lêkolînê ya PDK Îranê û hêviya serkevtinê di kar û xebatê de ji wan re dixwazin.

Hêjayî gotinê ye ku hebek ji kovara han ji aliyê komîsyona navhatî ya PDK Îranê ve, pêşkêşî pirtûkxaneya Desteya Nivîskar a Agirî, hatiye kirin.

agiri

**Rojnameya panzdehrojî ya siyasî, çandî û giştî**
**Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne**

**http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/index.php**
**Navenda bingehîn ya xebata Agirî li Kurdistanê ye.**
**Navnîşana derveyî welat:** AFK B.P. 102- 75623 Paris CEDEX 13 –FRANCE

**E - Mail:**
**agiri2003@hotmail.com**
**agiri2003@googlemail.com**

# Kevintirîn Dengbêjê Kurd Li Dêrsimê Çû Ber Dilovaniya Xwedê



Li Bakurê Kurdistanê bajarê Dêrsimê, kevintirîn dengbêjê Kurd **Fêrîk Dede** di 106 saliya xwe de jiyana xwe ji dest da.

Fêrîk Dede ji Ovacika girêdayî Dêrsimê bû û pîrekî Derwêş Cemal bû. Ji bo dermankirinê ew roja 10'ê Tîrmehê birin Stenbolê, li wir di 106 saliya xwe de li nexweşxaneyê çû ser dilovaniya xwe.

# Bo Cara Yekemîn Îraq Di Kopa Asiyayê de Bû Şampiyon



Roja yekşem, 29.07.2007'an, taqima Futbolê ya Îraqê di lîstika dawîn bo şampiyoniyê derkete hemberî taqima Erebistana Seûdî.

Taqima Îraqê di lîstikeke pir xurt de karî bi lêdana golekê bi ser taqima Erebistanê de bi ser keve. Gol li deqîqa 70'an de, bi pêyê lîstikvanê Îraqê, Yûnis Mehmûd hat lêdan.

Hêjayî gotinê ye ku taqima Îranê îsal gellek bi lawazî derket û li qonaxa yek heştem de bi taqima Koreya Başûr re dorand. Eva jî bûye cihê nerazîbûna xelkê Îranê û alîgirên vê sporê. Werzişa Îranê jî li vê qonaxê de wekî gellek carên berê bûye goriyê kirîz û danûstandinên siyasî.

Hewce ye were gotin ku di dîroka Kopeya Asiyayê de eva cara yekemîn e ku Îraq dibe şampyon û taca serkevtinê li ser dike. Serkevtina han li warê siyasî ve jî dikare mînakek gellek serkevtî û bi bandor be bo aştî, aramî û yekbûna niştîmanî li wî welatî de.

# Mezintirîn Banka Almaniyayê Pêwendiyên Bazirganî Yên Xwe Tevî Îranê Qut Kir

Banka **Doyçe** ya Almanî ku mezintirîn kerta taybetî ya wî welatî ye û yek ji dewlemendtirîn bankên Ewropayê ye, dawî bi hemû têkiliyên xwe tevî Îranê anî.

Berpirsiyarên bank ragihandin ku ew tenê ji ber sedemên siyasî pêwendiyên bazirganî yên xwe bi Komara Îslamî re qut dikin.

Biryara han li çarçoveya biryara 1747'an a Konseya Ewlekarî ya Neteweyên Yekbûyî li dijî Îranê de tê û gellek ji bankên Ewropî ji tirsa daxistina nivîsîngehên xwe li Amerîkayê de, têkiliyên xwe bi Îranê re qut kirine.

Bo mînak em dikarin îşare bi çend bankên navdar ku pêwendiyên xwe bi Îranê re qut kirine, wekî: Banka Komirzya Almanî, Birîtinz Bar Kilob a Birîtaniyayî, Soşît Cinral a Firansî, Kirdîl Sosîs Giropî û her du bankên navdar yên Holandî **USB** û **ABN** bikin.

# Li Hewlêrê Zarokekî 2 Serî, 3 Dest Û 3 Ling Ji Dayîk Bû



Avesta-Li nexweşxaneyeke Hewlêrê li Başûrê Kurdistanê zarokek bi 2 serî, 3 ling û 3 destan ji dayîk bû. Zarok di dema zayînê de mir.

Li ser bûyerên bi vî awayî lêkolînên pizîşkî derxistine ku çêbûna zarokên bi vî awayî, di destpêkê de, dema pîtandina hêkdanên dayîkê û gehiştina du sperman di heman dem de bo nav rehîma dayîkê rû dide û haleteke normal e. Her weha ew zarok dema ji dayîk dibin hin ji wan dijîn û piştre bi riya ameliyatê ji hev tên cudakirin, lê egera jiyana wan jî li piştî ameliyatê kêm e, loma Kurdistan jî bêpar nîne ji bûyerên bi wî rengî.

# Doktorekî Çavê Hunermend Gulbiharê Kor Kir



Piştî ku ava spî dikeve ser çavê rastê yê hunermenda dengxweş Gulbiharê, ew diçe ser doktorê çavan, Arif Yûnis.

Doktor Arif bi şaşîtiyeke operasyonê, çavê wê kor dike.

Li gorî malpera Avestayê, Gulbiharê daye zanîn, piştî ku hinek av dikeve ser çavê wê yê rastê, ew diçe nexweşxaneya Azadî, lê ji ber zehmetiya bîrokrasiya nexweşxaneyê, ew vedigere Duhokê cem Dr. Arif Yûnis, li wir jî li nexweşxaneyeke taybetî de dikeve bin kêra operasyonê.

Operasyon bi ser nakeve û doktor jêre dibêje çavê te kor bû û here li Hewlêrê çareyekê bibîne.

Tirsa wê yekê heye ku korbûna çavê Gulbiharê bibe penceşêr.

Gulbihar ji Hikûmeta Herêma Kurdistanê daxwaz dike ku alîkariya wê bike.

**Destêwerdan li kar û barên Îraqê de ne karê me ye, Amerîka sedema bingehîn ya teqîn û aloziyan e**



Reuf